R: 3

**PDKÎ: Rejîma Îranê ji her bûyerek nexwastî bo ser canê "Kebûdwend" berpirsyar e**



R: 6

**Hedanedan waneya rêberekî hedaneder bo...**



R: 7

**Daxuyaniya "ENKS" bi boneya 22'ê Pûşperê**



R: 11

**Qasimlo Sembol û semyanekî niştimanî**




Bidestveanîna Mafên Netewî Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal De

# Agirî

Hejmar: 187
21'ê Tîrmeha 2012'an
Buha: 150 Tûmen


## Amerîkayê daxwaza serbestberdana girtiyên siyasî li Îranê kir

Wezareta Derve a Amerîkayê di daxuyaniyekê de, nigeraniya xwe li hember rewşa girtiyên siyasî li Îranê, wate Mihemed Sidîq Kabûdwend û Nergis Mihemedî nîşan da. Berdevkê Wezareta Derve ya Amerîkayê daxwaz ji Îranê kir ku bilez hemû girtiyên siyasî serbest berde û li ser sozên xwe li dor azadiya raderbirrîn, ol û mafên kombûnan pabend be.


Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û giştî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî


# Hizra Qasimlo hêj ratiba riya xebatê ye



Di 23' mîn salvegera terora Dr. Qasimo de, rêving û evîndarên rêbaza mirovî a wî rêberê mezin yê netewa kurd, li herêm û bajarên cuda cuda ên cîhanê di rê û resmên cur bi cur de, yad û bîr anîna wan bilind nirxandin.

Di rê û resmekê de ku bi vê boneyê, êwariya roja pêncşemî, 22'ê Pûşperê li binkeya Deftera Siyasî a PDK Îranê birêve çû, birêz Têmûr Mistefayî endamê deftera siyasî, Dr. Qasimlo weke rêberek dahêner, nûxwaz û rêalîst nav bir ku, li her riyeke aştîxwazane û gûncaw bo bidestveanîna mafên netewa kurd mifah werdigirt.

Birêz Mistefayî tevlîbûna Dr. Qasimlo bi partiyê re weke nuqte guhertinek dîrokî di Partiya Demokrat de da zanîn.

Herweha di hûndur welat de jî, endam û alîgirên partiya demokrat, serbarê hebûna rewş û seqaya polîsî bi ser kurdistanê de, bi awayek berfireh çalakiyên teblîxî birêwe birin.

Li gelek cihên kurdistan û cîhanê jî, rê û resm û semînarên cur bi cur ên bi vê boneyê birêve çûn......

Yemenê bi tundî Îran hişyar kir

## Emê we li cîhanê de riswa bikin

**Serkomarê demkî ê Yemenê li peyamek telewîzyonî de êrîşek tund kire ser rayderaên Komara Îslamî û ew tometbar kir ku mijûlê çalakiyên sîxorî li Yemenê de ne.**

Mensûr Hadî gef xwariye ku li egera berdewamiya van reftaran de, rejîma Îranê vê hezîneya wê bide.

Navbirî ragihand ku rejîm dê şikestê bixwe li van hesabên xwe de li Yemenê û emê wan (Komara Îslamî) li cîhanê de riswa bikin. Hevdem Mihemed Mursî, Serkomarê nû ê Misrê jî çûna şaromendên Îranî û Îraqî bo Misrê qedexe îlan kir.

## Pêvajoya kuntirol kirina bajarên Kurdî li Sûriyê ji aliyê kurdan ve berdewam e



Îdareya bajarên Kurdistana Sûriyê yek bi yek dikewe dest xelkê û hêzên siyasî ên kurdî. Heya niha çend bajarên weke: Kobanî, Efrîn, Tirbesipî û ... bi bê xwînrêtin ketine dest kurdan û alaya kurdistanê li ser banê her îdare û nawendek hikûmetî ve hatiye hildan.

## Sergotar

### Mizgîniya azadiyê

**Selîm Zencîrî**

Şoreşa azadiya Sûriyê gihaye qonaxek nazik û dîrokî û gav bi gav nêzîkî serkevtinê dibe; her roj cixiza dora Esed tengtir dibe û kuntirola bajar û deveran dikewe destê azadîxwaz û şoreşiyan. Wate şoreş hêdî hêdî digîje ber û berhema xwîna şehîd û goriyan, ku azadî ye ku her ji niha ve dengê wê tê bihîstin.

Eva jî cihê keyfxweşiya hemû mirovdost, azadîxwaz û aştîxwazan e. Bi taybetî bo me kurdan pirr girîng e ku parçek din ya Kurdistanê rizgar dibe. Parçek ku mêjdem e li bin nîrê zordarî û dageriya Rejîma Esed de hatiye çewsandin û ji hemû mafên xwe ên mirovî û netewî hatiye bêpar hiştin. Niha ku pêvajoya rizgarbûna bajarên kurdan bi bê xwînrêtin dest pê kiriye, şahî û govend di dilê her kurdekî/ê de digerre û mizgîniya buharek bi xeml û rengîn dide wan û hemû tallî û birînên wan bi tama azadiyê wê derman bike.

Lewre birayên me ên kurd li Sûriyê pêşberî qonaxek hestiyar a dîrokî de ne. Ji ber ku şerê mezin niha şûn de dest pê dike û divêt her ji niha ve yekîtî, biratî û stratejiya karê hevbeş û dûr ji berjewendiyên partîtî, li ser xîmê demokrasî û rêketina Hewlêrê li navbera hêzên kurdî de bibe hêvênê birêveberî û îdareya kurdistana Sûriyê di bin her nav û modelek xwebirêveberiyê de be, û wusa tevbigerin ku him azadiya bidesthatî biparêzin, him jî bikarin li hemberî her deng, pîlan û êrîşek şovenî û qirêj ên navxweyî û derekî de berxwe bidin. Herweha serbarê wê ku nehêlin carek din dîrok dubare bibe, bibin moral û hêvî û piştîvanek bo birayên xwe li parçeyên dinê.

Pîroz be ev serketina han û bi hêviya serketina yekcarî.

Têmûr Mistefayî:

# Dr. Qasimlo hem dahêner, hem jî nûxwaz bû

Xûşk û birayên hêja!
Pişikdarên birêz!

Bixêr bên bo komyada 23'mîn salvegera terorkirina rêberê mezin Dr. Qsimlo û hevalên wî.

Kombûna her salî a me di salvegera şehîdkirina Dr. Qasimlo de, bi wateya xwendin bi bejn û bala Dr. Qasimlo, (eva ku jêre dibêjin ''tekperestî'') nine, belkî Dr. Qasimlo di dema jiyana xwe de hertim dijî tekperestiyê bû. Ku wusan e civîna me li vir bi du meremên sereke tê lidarxistin. Yekem, eva ye ku tevî riha paqije şehîdan soza dirêjîdan bi rêbaza wan, heya gehîştin bi armancên bilind û pîroze gel nû bikin. Duyem jî ev e ku di wan civîn û bîranînan de, her carekê aliyek ji hizr û nêrîn û waneyên Dr. Qasimlo bixin bîra wan hevalên ku bi salane di çepera xebatê de tekoşîna xwe berdewam dikin û herwisan ew ciwanên ku nuh tevlî refên PDKÎ dibin, wan hizr û nêrînên Dr. Qasimlo bikin çirayê rêya xebata xwe û mifahê jê werbigrîn.

Ger em bixwazin ku bas ji tev nêrînên Dr. Qasimlo bikin, di rastî de hizr û nêrînên Dr. Qasimlo gelek aliyên cur bi cur bi xwe ve digirin û di çarçoveya kombûnek han de, em nikarin hemî ew aliyane şirove bikin.

Lê emê hewil bidin di vir de du aliyên cuda yên bîr û hizrên Dr. Qasimlo şirove bikin.

**Yekem biyav, biyava dahênan û nûxewazî:**

Dr. Qasimlo, mirovekî dahêner û nûxwaz bû. Ger bo mînak basa vegeryana Dr. Qasimlo di sala 1349' (Rojî) û zindîkirina PDKÎ di wî çaxî de bikin, bi ronî dixuye ku Dr. Qasimlo çawan ji bo nûxwazî û dahênanê dixebitî. Wê demê ku Dr. Qasimlo vedigere, di rastî de PDKÎ xwedî navekî mezin û malekî wêran bû.

Partiya Demokrat di wî heyamî de, anku çend sal berî hatina Dr. Qasimlo, ji rêya rastîn a xwe dûr ketibû, gelek hizr û nêrînên cur bi cûr, bandora xwe xistibûne ser vê partiyê û di rastî de PDKÎ tenê navê vê mabû. Lê hatina Dr. Qasimlo û komkirina hevalên partiyê û danîna bername û pirogramek nû, rêvebirina dewreyên kadriyê bi awayek berdewam, veşandina car din a Rojnameya Kurdistanê û... ruhek taze da ber Partiya Demokrat û di serî de car din vê Partiyê divejîne. Vejandina PDKÎ di wê demê de, guhartinek pir mezin bû di jiyana partiya me de. Lê ew vejandine jî nikare bersivderê tev wan hez û daxwazên Dr. Qasimlo be û merema navbirî bicî bîne. Lewma Dr. Qasimlo direjî bi vê pêvajoyê dide. Anku organîzekirina partiyê di warê hizrî de, jiberku wê dema ku Dr. Qasimlo vedigere nava partiyê, hizba Tûde nifûzek berçav kiribû nava refên hizbê û ji aliyekî din jî di bin zêrevaniya bîr û hizrên nasiyonalîstî de mabû. Lê Dr. Qasimlo bi darêtina bername û pirogramek nû û danîna dewreyên kadrî û derkirina rojnameya Kurdistanê, cehd dike ku ruhek nû bide ber PDK Îranê.

Di doma vê pêvajoyê de, tu mêze dikî ku di salên dawî û di kongireya sêyem de, pirsa sosyalîzmê tîne rojevê. Ew sosyalîzm- demokratîka ku li sala 1362'an de bi pesend gihand, li rastî de li piroseyekê de derbas bû heya ku gihîşte vê qonaxê di sala 1362'an de hat pesend kirin.

Ger hawriyek bi wan armancan bihê dayîn ku Hizba Demokrat li salên berê de hebûye, dibînin ku li kongireya sêyem de sosyalîzm, sosyalîzma dadwerane ye. Di kongreya çaran de, ku nifûza Tûdehiyan zêde bû, di wê kongireyê de dibe bi sosyalîzma ilmî. Lê her di wê kongireyê de Dr. Qasimlo biryarek din dide pejrandin ku ew belge bi xwe rê û cihekê diyarî dike li navbera bîr û bawerên demokratîk û nedemokratîk de, ew jî sîmaya demokratîk e.

Dr. Qasimlo hewil dide ku vê pêvajoyê pêş bixîne, lewma di kongireya pêncan de, sosyalîzmê dike li gor rewş û zirûf û di dawiyê de li kongireya şeşan de sosyalîzma demokratîk weke armanca pêşeroja hizbê bi hevkariya hevalên xwe di PDKÎ de dipejirîne. Anîna sosyalîzma demokratîk di rastî de, sinûr danînek bû di navbera bîr û hizrên demokratîk û ne demokratîk de, û eva dahênaneke ku heya niha jî bi salane em şanaziyê pêve dikin. Ku wisan bû dahênan û nûxwazî yek ji taybetmendiyên bilinde Dr. Qasimlo bûn.

Meseleyek din ku em basê jê dikin, eva ye ku Dr. Qasimlo mirovekî realîst bû, anku rastbîn bû. Li nêrînek rastbînane ve siyaset û pirsên rojê şirove dikir. Dr. Qasimlo di pirtûka xwe ya bi navê ''Kurdistan û Kurd''ê de basa vê çendê dike ku **netewa Kurd yek netewe ye û bi hez û xwasta xwe nehatiye parvekirin,lewma ger yek bigire, ewa parvekirina axa tu welatekê nine, belkî hevgirtina netewe û axek parvekirî ye**.

Lê her wê demê ewa ku jêre dibêjin ''siyaset, hunerek momkîne'', li siyaset kirinê de Dr. Qasimlo li ser vê bawerê ye ku di siyasetê de diviya ew karê ku momkîn e encam bidî, anku rastbînî di siyasetê de. Lewma mêze dikin ku silogana PDKÎ di dema jiyana Dr. Qasimlo de,



demokrasî bo Îranê û Xudmoxtarî(otonomî) bo Kurdistanê bû. Bo gihîştin bi vê armancê ji metodên cur bi cur mifah wergirt.

Herwek dizanin ku, bi hatine serkar a rejîma Komara Îslamî, PDKÎ û li serweyî hemûyan, rêberê mezin şehîd Dr. Qasimlo, hewlek zaf da ku di Kurdistanê de şer neqewime û pirsa Kurd li rêya diyalog û gotobêjan ve were çareser kirin. Çend cara hat û çûna Tehranê kirin, li Kurdistanê jî, di dema êrişa hêzên rejîmê bo ser xelk û Kurdistanê de, PDKÎ çend caran tekoşîn meşand ku bi awayek medenî û bi anîna xelkê bo ser kolanan, pêşgîriyê ji şer û pevçûnên navbera xelkê û PDKÎ û hêzên rejîmê bigire.

Girevgirtina bajarê Pawe, yek ji wan kiryaran bû ku dibe xala destpêkirina şer bo ser Kurdistanê. Ew mangirtin di dem û cihekê de bû ku 35 kîlometran li bajarê Pawe ve dûr bû. Dema ku em bi Dr. Qasimlo re diaxivîn qise ku em çi bikin, digot: ''hinek din vekêşin''. Yan dibînin ku di dema êrîşa dubare bo ser Kurdistanê, li Kamiyaranê landikan tînin ser şeqaman û mal û zarokan tînin ser cadeyan, heya ku pêşî ji top û tankên rejîmê bigirin û nehêlin şer li Kurdistanê dest pê bike.

Di çendîn warên din de em dikarin îşare bi xebata medenî di wî serdemî de bikin. Xebatek sivîl ku xelkê jêve ye îro dewrana xebatek han e û taze digehine ser vê bawerê. PDKÎ û li berî hemiyan Dr. Qasimlo 23 salan berî niha bîr ji wê yekê kiriye û di vê pêxemê de xebat bo kirye. Dirûşma me hertim ewa bûye ku emê ji hemû metodên xebatê mifahê werbigrîn. Lê eger rejîmê metoda xebata çekdarî bi ser me de sepand, di rastî de ew awayê xebatê li gor hez û daxwaza me nebû.

Me hemû hewlên xwe dan ku pirsa Kurd bi rêya diyalog û gotobêjê ve çareser bikin, lê mixabin aliyê hember ku hêza yekem e, xwediyê vê eqliyetê nebû û bi xurtî şer bi ser Kurdistanê de sepand.

Dawîn tekoşîna Dr. Qasimlo bo çareserkirina doza Kurd bi awayek aştîxwazane, ew bû ku di seferek bo Viyenê de, tevî dîplomat terorîstên Komara Îslamî civiya û tev hêviya wî ew bû ku belkî bikaribe doza Kurd li rêya aştîxwazî û gotobêjan ve çareser bike. Lê li vir ji dîplomat terorîstên Komara Îslamî bi mifahwergirtin ji îmkanatên dewletê, êrîş kirine ser canê Dr. Qasimlo û hevalên wî, bi vê hêviyê ku PDK Îranê bi şehîd kirina Dr. Qasimlo ji nav bibin. Eva terorîzim e bi wateya dewletî a wê. Dr. Qasimlo di hevpeyvînek bi Atife Gurgîn re di sala 1365'an de, bas ji vê yekê dike ku li welatên Rojava, tenê danîna bombe û revandina mirovan û ... bi terorîzm dihesibînin. Lê Dr. Qasimlo dibêje ku, terorîzim bi manaya rastîn a xwe, pêkhatiye ji tepeserkirina xelkê, dagîrkirina xakê û piştevanî kirin ji girûpên terorîstî ji hemû biyavan de terorîzmê pêk tînin û em vê yekê pirotesto dikin.

Mixabin Dr. Qasimlo kete davka vê terorîzma dewletî ku em bas jê dikin. Ew terorîzma dewletî zor bi sanahî di paytextê welatek Ewropayî de ku xwe bi nawenda şaristaniyet û dadperweriyê dizanin, mixabin di çarçoveya dan û standinên bazerganî û li çarçoveya wan îmkanatên dewletî ku li destê wan de bûn, karîn zor bi hêsanî li ser maseya bi nav gotobêjê, Dr. Qasimlo û şehîd Ebdula Qadirîazer û Dr. Fazil Resûl teror bikin û xwe derbas bikin. Li vir de ye ku pirsa dadweriyê û bi taybetî dem û dezgeha dadweriya welatê Otrîşê bi tewahî çû bin pirsyarê.

Piştî derbasbûna 23 salan, eger em mêze bikin Komara Îslamî bi vê armanca ku pêre xebitî û Dr. Qasimlo şehîd kir, negihîşt, belkî roj li pey rojê rewşa rejîmê ber bi alozî û xirabbûnê ve diçe. Her di heyamê derbasbûyî de koşka dîktatoran yek bi yek bi hiloşînê re berbirû bûne. Li welatê Tûnisê ew pêvajo dest pê kir û ji bo welatê Misrê dirêjî kêşa û bû sedemê hiloşîna wan rejîman û niha jî rejîma Beşar Esed di bin zext û givaşên azadîxwazên wî welatî de ye ku bi dijî Esed û dîktatoran tekoşîna xwe didomînin. **Dom li R: 3**

# PDK Îran: Rejîma Îranê ji her bûyerek nexwastî bo ser canê "Kebûdwend" berpirsyar e

**Deftera Siyasî a PDK Îranê, di daxuyaniyekê de daxwaz ji kor û civatên mirovhez kir ku di pêwendî li gel bi cihanîna daxwazên Kebûdwend de givaşê bixin ser rejîma Îranê.**

**Deqa daxuyaniyê bi vî awayî ye:**

Kor û civatên mirovhez!

Çalakên mafên mirovan!

Li gor zanyariyên belavbûyî, pêtir ji 50 rojan e "Mihemedsidîq Kebûdvend" gireva birçîbpûnê girtiye û di girtîgehên tarî ên rejîma Îranê de jî, laşê xwe zîndanî û tûşî sinûrdarkirinek din kriye daku rihek azadtir hebe.

Gireva han tenê ji bo daxwaziyek sade weke dîdara bi zarokê xwe re ye. Li gor nûçeyan, rewşa saxlemiya birêz "Kebûdvend"di metirsiyê de ye û tê zanîn ku ew rakirine nexweşxaneyê û egera bûyerek tehl, nexwastî û di metrisî ketina canê wî heye.

Em daxwaz ji gişt kor û civatên alîgirê mafên mirovan û navendên navnetewî dikin ku givaşê bixin ser rejîma îslamî a Îranê heya daxwaza rewa û sadeya birêz "Kebûdvend" berçav bigre û rê ji rûdana bûyerek nexwastî bigre.

Di vir de em radigihînin ku her cure metirsiyek berbirûyê laş û canê Mihemedsidîq Kebûdvend bibe, her encamek dilêş û nexwastî di pêvajoya girevgirtina wî de bihê pêş, berpirsatiya wê dikewe stûyê rejîma îslamî a Îranê û li serweyî hemûyan rêberê rejêmê, û ew berpirsiyarên



parastina canê Kebûdvend û gişt girtiyên siyasî ne.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**16'ê Tîrmeha 2012'an**

# Heyetek PDK Îranê di rê û resma salvegera roja netewî a Firansa'yê de beşdarî kir



Bervara 14'ê Tîrmeha 2012'an Heyetek PDK Îranê bi serperestiya birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê Partiya Demokrat li ser gaziya fermî a Konsolxaneya Firansa li Hewlêrê di cejna netewî a Firansa li bajarê Hewlêrê beşdarî kir.

Rê û resmê bi axaftina birêz "Dr. Firîdrîk Tîso" Serkonsolê Giştî yê Firansa li Hewlêrê dest pê kir ku tevî keyfxweşî û bixêrhatinkirina mêvanan, basek li ser şoreşa Firansa û çawaniya nasyarbûn bi pirsa Kurd kir û got: 26 salan berî niha ez ji bo karê pijîşkî hatim Kurdistanê û di nava pêşmergeyên PDK Îranê de û ji riya Dr. Qasimlo ve li gel pirsa Kurd nasyar bûm.

Navbirî li ser kesayetiya Dr. Qasimlo zêde axifî û got: Sala 1974'an, min li baregaya Mela Mistefa Barzanî "Dr. Bêrnard Kuşnêr" dît ku min ew jî her di riya Dr. Qasimlo de nasî û hezkirina min bo gelê Kurd wusa ji min kir ku posta Serkonsolgeriya Firansa li bajarê Hewlêrê bipejirînim.

Piştre birêz Mesûd Barzanî tevî pîrozbayî ji Konsol û Netewa Firansa, rol û kartêkeriya birêzan "Firanso Mîtran" Serkomarê berê yê Firansa û "Danyel Mîtran" dosta nêzîk a Kurd bilind nirxand û "Dr. Firîdrîk Tîso" wekî pêşmergeyê Kurdistanê binav kir.

Di rê û resmê de birêz "Mistefa Hicrî" û heyeta pêre, li gel çendîn kesayetiyên hizbî û hikûmetî hevdîtin pêkanîn û herweha heyeta partiyê pîrozbahiya germ a xwe pêşkêş Konsolgeriya Firansa kir.

**Doma R: 2**

Komara Îslamî di vê navberê de, hem li tirsa vê çendê ku ew serhildan rojekê pêsiya vê rejîmê jî bigire û hem jî li tirsê vê yekê ku hevalbendek nizîk yê xwe li herêmê de jî dest bide, li kar û barên wî welatî de destêwerdanê dike û bi qazancê deshilata dîktator, xelkê azadîxwaz û dijber yên Esed tepeser dike.

Bi xweşî ve, rewşa rejîmê li zurûfek pir aloz de ye. Anku bi tewahî di asta cîhanî de li halê îzolebûnê de ye. Li asta navxweyî de jî rewatiya xwe ji dest daye. Di warê abûrî de rewşa welêt bi awayekî berbiçav şipirze û tûşî şikestê bûye. Bi awayekê ku di heyamê şeş mehan de nirxa dolar du hember bûye û roj bi roj bêkarî û giranî li welêt de zêde dibe. Lê qursayî a pêkhatina wê giraniyê, zêde ketiye ser milê xelkê hejar û belengaze welêt.

Berpirsayetiya vê rewşa aloz û nebaş a jiyana xelkê, dikeve ser milê Komara Îslamî û ewa rejîm e ku bi wan siyasetên biyom û nigetîv ên xwe û herwusan bi piraktîze kirina siyaseta tepeser kirin û zulm û zordariyê, rewşek pêk aniye ku roj bi rojê rejîm di asta herêmî û cîhanî de dikewe perawêzê û tevî dorpêçên berfirehtir berbirû dibe.

Komara Îslamî bi dirêjîdan bi piroseya mehandina Uraniyomê bi merema çêkirina çeka etomî, rewşek afirandiye ku roj bo rojê pêvajoya tehrîman bi ser wî welatî de berfirehtir kiriye û di pêşerojê de jî diviya em çavnihêrê vê yekê bin ku rewşa jiyana xelkê û zirûfa abûriya îranê berbi alozî û kirîzek bingehîn ve biçe û evê jî bandora xwe ya nerênî heye ku min pêştir îşare pê kir ku berpirsyaretiya vî barê giran dikewe stûyê Komara Îslamî, lewma komara Îslamî di serdemekê de ye ku egera xebat û serhildana berfireh ya tev pêkhateyên xelkê bi dijî vê rejîmê li holê de ye.

Xebatek ku Dr. Qasimlo bi salan di pêxemê de xebat kir, tekoşîn meşand û digot ku: ''ev rejîme dîktatore û divê jinav biçe û rejîmek demokratîk cihê wê bigire''.

Em hêvîdar in ku bi tekoşîna xelkê û bi yekrêzî û hevgirtin û cehda tev aliyan bikarin bi hevre tevî hemû xelkê Îranê û xebatkarên rêya azadiyê vê rejîmê jinav bibin û rejîmek demokratîk bînin serkar û ew rejîm bikare mafê tev netewên Îranê dabîn bike, bi hêviya wê rojê.

Herweha lêre de, anku di salvegera terora Dr. Qasimlo û hevalên wî de, hewce ye ez rêz ji yad û bîranîna rêvîngekî emegnas û bi wefa yê Dr. Qasimlo bigrim. Rêvîngek pir dilsoz, xebatkar, xelkî, xakî, bi şiyan û lêhatî, anku kak Seyîd Selam Ezîzî.

Kak Selam Ezîzî di 24'ê pûşpera sala 1387'an, bi hegera nesaxiyekê ve çû ser dilovaniya xwe û malawayî ji hevçeperên xwe kir. Kak Selam di sala 1325'an de ji dayîk dibe û xwendina xwe ya destpêkî li gundê xwe (Ezîzkendî) li bajarê Bokanê bidawî tîne, piştre diçe bajêr û li wir xwendina xwe didomîne û dîploma xwe werdigre û piştre dibe mamosta û wekî mamosta kar dike. Li sala 1350'î de, li zankoya Yasa'yê de tê wergirtin û piştî tewaw kirina qonaxa zankoyê vedigere Urmiyê û li wir wekî dadwerê dadgeha wî bajêrî tê damezrandin. Piştî heyamekê li sala 1356- 57'an de, kak Selam Ezîzî dibe serokê dadgeha bajarê Bokanê.



Kak Selam Ezîzî, sala 1358'an (Rojî), tevlî refên PDKÎê dibe. Her di yekem roja hatina bo nava hizbê heya roja şehîdbûna wî, gelek berpirsatiyên cur bi cur di hizbê de birêve birin. Weke endametiya Heyeta berêveberî a komîte şaristan ve bigre heya endamê komîsyona komelayetî, berpirsê komîte şaristana Serdeştê, piştre endamê komîteya navendî û piştre jî endamê deftera siyasî û berpirsê komîsyona malî-xedematî û siyasî nîzamî, ku rolek girîng û mezin li kar û barên hizbê de hebû.

Kak Selam mudîr û rêveberek pir jêhatî bû û li rêvebirina biryar û raspardeyên hizbê de hemû hewla xwe dida. Ger bi kurtî bêjim, kak Selam mirovekî xweştevî bû di nava hizb û civakê de. Mirovekî zana bû û li derbirîn û derkandina nêrînên xwe de zor hişyar û cesûr bû. Hertim û berdewam dijî bîr û bawerên laderane bû ku mafê wan bi ser hizba demokrat ve nebû û nifûz kirbûne nava PDK Îranê de. Kak Selam sermayeyek bû ku mixabin gelek zû ji dest çû. Li jiyê 53 saliyê de koça dawiyê kir.

Lê li vir de, silawan dişînim bo şehîdê tu car nemir, şehîd Selam Ezîzî û soza domandina rêya Qasimlo, bi Dr. Qasimlo û Ebdula Qadirîazer û kak Selam Ezîzî û hemû şehîdên rêya rizgariya Kurd û Kurdistanê didin û hêvî dixwazin ew roj bê ku netewa me di pêxema hewil û tekoşîna wan û xebatkarên rêya demokrat û hemû neteweya Kurd de bikare bigihîje armanc û hêviyên wan ku demokrasî, mafên neteweyî û dadperweriya civakî bû.

**Bi hêvya wê rojê.**



# Perwerdeyek nehadînekirî yan senaryoyek darêtî?



Selîm Zencîrî

Wusa dixuye ku stêrka bextê rejîmê li vî midehî de ne tenê li biyava siyasî de, belkî li warên din de jî rû ji lawazî û tarîtiyê kiriye û roj nine ku li kuncek ji vê cîhana pan û berîn de kumpilo, şermezarî, bêexlaqî û hovêtiyek berpirs û dîplomatên rejîmê eşkere nebe û perde li ser cînayetên wan nehê hildan.

Rejîmek ku nûçeyên bêexlaqî, hîzî û ''zarok bazî'' a rayedarên wê li welatên cur bi cur ên cîhanê bi taybetî vê dawiyê li welatê Almanê de bûye rojev û pêxorek bo medya û ragihandinên giştî, li kemala bêedebî û li ewperê bêşermiyê de serbarê veşartina wan nûçeyan, ew bêexlaqî bi pîlana dezgehên sîxorî ên rojava û herweha bi ''cudahiya ferhengî''di nav kir.

Belê eva ye peyam û rîsaleta rejîmekê ku 33 salin xwe li pişt rûbenda dîn, îman û dadperweriyê de veşartiye û îdeaya birêveberiya cîhanê û nûneratiya xwedê li ser erdî dike. Rejîmek ku ji seytere û pirsgeha îdeolojîkî a xwe ve bi dehan diyardeyên xirab û malwêranker xişandine nav civakê û bi organîze û sîstimatîk kirina wan ku bûne bi beşek neveqetyayî ji siyasetên wan, rewatî û meşûriyetê dide karên nemirovî û nerewa ên xwe.

Rejîmek ku em dibînin jiyan ji keç û jinên Îranê tal û herimandiye û bi hêceta ''bê hicabiyê'' her roj sivikatî û bêrêziyê bi wan dike, digre û li nav girtîgehên sedsalên navîn de bi fermana Weliyê Feqîh destdirêjiyê dike ser wan. Yan eva ku bi tawana pêwendiyên cinsî ( bi hesaba xwe berevajî yasayên şeri') cezaya lawan û hevwelatiyên Îranê dide û gelek kiryarên hovane û dûr ji pirensîpên mirovahiyê weke kewirbaran, Îdam, birrîna endamên leş û ...htd li dijî wan encam dide, lê niha derdikewe ku bi xwe çawan li nav deryaya bêexlaqî û cinayetan de niqum bûye û berpirsên wê her roj zêdetir naveroka dijî mirovî hov a wê bo cîhanê eşkere dikin.

Rejîmek ku berpirsên nesaxe wê, ji destdirêjiya cinsî weke alava nehadînekirî a serkutê bona pêşvebirina siyasetên xwe li dijî keçan, jinan, lawan û cudabîrên welatê me mifahê distîne, heyameke ku sînorê fesada exlaqî, hovêtî û bêrehmî a wan Îran jî derbas kiriye û pêsîr û berçêla zarokên bêguneh ên welatên din jî girtiye û bi vî kar, kiryar û siyasetê, serbarê nîşandana rûçikê rastîn ê xwe ku mizgînîderê tarîtî, mezhera cînayet û zordariyê û îlhamderê fesad, dizî û destdirêjiyê ye, keramet û kesatiya xelkê Îranê û nemaze ayîna pîroz a Îslamê jî birine bin pirsiyarê.

Lewre pasawdan yan hewildan bona veşartina wan cure bêrêziyan, tekoşînek bêsûd e û êdî çi din nikare dest bi ser kilawê ba birî ê rejîmekê debihê girtin ku li bin e'bayê rêber û şaşika melayan û hikûmeta îslamiye wan de, bêexlaqî, cinayet û zordarî hawarê dike û her sînorek bezandiye.

# Niqurçk

## Mirîşk bêt!? Bila bê, dest nakeve!!!



Ceifer Mubeşirniya

**Kişe kişe kiş mirîşkê ho serê min dêşe, kişe kişe kiş mirîşkê ho dilê min dêşe!!!!**

Hey dinayê hey dinyayê, kê niha dil dide kişke mirîşk xanimê. Welah qude quda wê jî ji Îraniyan re bû xewnên şevan.

Cîhanê tehrîm xistin ser Îranê daku xelkê ji destên vê rejîma mirovxwar rizgar bikin yan jî gefên li ser xwe nehêle, lê weke dixuye mirîşk di encama wê tehrîmê de ji destên mirovan rizgar bûne, û niha tenê mirîşk ji rejîma Îranê re hevpeyman in.

Di vê pêwendiyê de, Dîkê Larrî di daxuyaniyekê de ragihand ku rejîma Îranê mezintirîn piştevanê parastina namûsa me ye û Amerîka nikare tu xeletiyan bike.

Birêz Dîk amaje kir: Her weke birayê min yê hêja Ehmedînijad ragihandiye, azadiya di Îranê de heyî li dinyayê de bêmînak e. Ji bo semlandina vê pirsa dîrokî jî binêrin gişt cîhanê ka mirîşk li kîjan welatano ewqas binirx in û mirov nikare bêje mirîşk xanimê li pişta dimikê te çavin.

Mirîşkê jî ji hêla xwe ve sipasiya rêberê Îranê kir û soza şerefê da wî ku piştî Tîrmehê heke rewşa aram bibe, ewê ji Xamneyî re hêkek du zerik bike, lê Xamneyî ji vê yekê jî piştrast kir û got: Em mirîşk nikarin edetên xwe berdin, hêka me ji yekî re ye û çîrta me ji yekî din re. Ger ez ji te re hêk bikin, gerek çîrta min ji Ehmedînijad re be!!

Li hember de rêvî di nameyek servekirî de gazincên xwe ji Xamneyî kirin û nivîsaniye: Heya niha we ji bo ragirtina xwe di desthilatê de, ji ezmûna min mifah standiye, lê niha ku li gel bayê Buhara Erebî Mirîşk jî ji serxwebûna xwe nêzîk dibin, we piştgirî daye pêla rizgarîxwaziya Mirîşkan. Lê bawer bike ger tehrîm bertengtir bibin, xelik dê birçîtir be û mirîşk jî ji tirsa canê xwe, de navên xwe li "UN"ê tomar bikin.

Bêguman wê mafên penaberiyê ji Amerîkayî, werdigre, vêca çawa Mirîşk xanimê tu ji neguherîna edetên xwe hişyar kirî, wê hêkan ji Amerîkayê re bikin û çîrta xwe jî ji tere bişînin.

Navbirî di beşek din ji a nameya xwe de ku teqek wê gihîştiye "Nuqurçk"ê, di pîlanek darêtî de daxwaz ji Xamneyî kiriye ku gerek nirxa Tûmen li hember Dolar de zêde bibe û mîna caran lê bê. Ger wa nebe, min guman tune ye ku Dolar wê derkeve bazarê û Tûmen jî wê bibe peyîn.

Mam Rêvî li zarê Eleşîşekê ve ku nexwast navê wê eşkere be ragihand: Îna derbasbûyî mirîşkê ji eleşîşekê re pesnên xwe dabûn û gotibû ku niha pêde emê rabigihînin ku Tûmen ne hêjayî kirîna meye, gerek Dolar yan jî Euro bihê bazarê. Eva jî ji Eleşîşê nexweş tê û eleşîş difikire ku ger wuha here pêş, êdî mirîşk wê bibin desthilatdarên welat, lewma rapora han gîjandiye rêvî.

Rêvî jî fikiriye û di çend dêrekên dawiya nameya xwe de bo Xamneyî nivîsaniye: Di dawiya emrê te de tenê mirîşk ji te re hevalbend in, vêca ew jî wê bi dirûşmên xwe bikevin ser şeqaman û bêjin: Qut Qut, Qut Qut wa nakin, em êdî hêkan nakim, Dolar nebe şû nakim, serbihevî mêran nakin, xwarina dîkan heram kin.



# Misr; rabûn an ketinek bi azar?(II)



Ebdula Hicab

Serkevtina yekê ya Îxwanê di ezmûna demokrasiya Misrê de, konseya leşkeriye welat neçar kir ku bi nermî nêzîk tevgerê bibe.
 Bi awayekê ku konseya leşkerî rê da berendamê girêdayî bi Îxwan bi serbestî bikeve pêşbaziya hilbijartinê û hilbijartina serokkomariyê qazanc bike. Serokkomarê nû, Muhemed Morsî, bi serkevtina di hilbijartina serokkomariyê de, berê serhildana Misrê da riya Îxwanan. Her çend ew xwe weke kesayetiyek muhafizekar, lê dûreparêz ji binajoyî û tundutîjiyê dide nasandin, lê hevbaweriyên wî bi hêvî ne ku serokkomarê nû "hem Filistinê ji bo wan rizgar bike û hem yêkîtiyekê di nava Ereban de ava bike ku bingeha Dewletên Yekbûyiye Erebî danê".

Her çend Konseya Leşkerî hinek desthilata Serokkomar Morsî bi sînor kiriye, lê serokkomar di siyaset û birêveberiya welat de xwedî bandora sereke ye. Lewma rojên li pêşiya xelkê Misrê, wê ji bo pêşeroja welat û pêvajoya guhertinan pir giring bin. Di serî de ceribandina herî bi wate û bi bandor ji bo serokkomarê nû, wê di asta navneteweyî de be. Tevgera Îxwan û çalakvanên wê bi hêvî ne ku Misr têkiliyên xwe bi Îsraîlê re qut bike û bi awayek çalak piştgiriyê bide tevgera destexwîşka wan, Hemas, li Filistînê. Pêwendiyên di navbera Misr û Îsraîlê her tim bandor li ser siyaseta navxweye Misrê hene, lê niha ew bandor dikare hê pitir xwe nîşan bide.

Tevgera Îxwan ji destpêka damezirandina xwe ve heya niha her demê bi çavê dijmin temaşey Îsraîlê û peymana aştiya navbera Misr û Îsraîlê kiriye. Niha ku serokê welat bi piştgiriya wê tevgerê hatiye ser kar, gelek asayî ye ku têkiliyên bi Îsraîlê re li ber çavan re bêne derbas kirin. Eger serokkomar sozên tevgera xwe bi cî bîne, wê demê Misr bi qeyranek xurte navneteweyî re rûbirû dibe. Ger bê û ew bi peymana aştî ya navbera du welatan re girêdayî bimîne, wê demê wê takekes û komên ku deng danî wî, pişta xwe bidnê.

Ji bo Îsraîlê jî ew rewş pir hestiyar e. Girêdana dewleta nû û tevgera Îxwan bi peymana aştiyê re tê manaya misogerkirina aştiya du alî û ewlekariya stratêjîke Îsraîlê. Berevajiya wê dikare encamên bi karesat bi xwe re bîne.
 Yek ji ceribandinên din yên herî giringe li pêş serokkomarê nû mijara demokrasî û pirrengiya siyasî li Misrê ye. Bi serketina Morsî re civaka Misrê kêm an zêde bû du beş.
 Her çend Îxwan El Muslimîn û berendamên wê kontrola nêzîk niviya kursiyên Parlemanê bi dest ve anîn û berendamê wê tevgerê hilbijartina serokkomariyê qazanc kir, lê niviya civaka Misrê nîşan da ku ne bi tevgera Îxwan re ye. Beşek bi hêz ji civakê bi kevneşopiya rewşenbîrî û kultûriye Misrê serbilindin. Ew hatine ser kara Îxwan El Muslimîn weke metirsî bo ser wan nirxan dihesibînin. Dan û standinên serkevtiyên nû bi opozisyon û wê beşa civakê re ku di hilbijartinan de bi ser neket, wê nîşan bide ka aliyê binketî bi çi awayî li hember serdestên nû bisekine.

Kontirola tayên tundrewe hundir an piştîvanê tevgera Îxwan jî yek ji astengiyên ser



riya Morsî ye. Piraniya hilbijêr û alîgirên wê tevgerê ji wê beşa civakê ne ku beriya ji encamên karê xwe bifikirin biryarê didin û dikevine nava tevgerê. Eger bê û beşek ji tevgera Îxwan bi pîvan û nirxên bingehîne tevgerê re girêdayî bimîne û ji bo birêvebirina wan nirxan bikeve kolanan, wê Morsî hem bi wan re, hem bi hêzên ewlekarî û artêşê re û hem jî bi civaka navneteweyî re bikeve nava astengiyan.

Di rewşek wisan de ne dûre ku Misir ber bi bahozek tarî ve here, ji ber ku di rewşek wisan de dubare artêş dikare bi awayek çalak bikeve nava tevgerê û kontrola siyasetê bigre destê xwe. Asayiye di rewşek wisan de ew beşa civakê jî ku nirx û pîvanên xwe di bin siya siyaseta Îxwanan de li ber metirsiyê dibîne bi awayek çalak piştgiriyê bide artêşê. Di rewşek wisan de wê komên tundrewe olî bêdeng nemînin û senaryoya ku dikare were pêş wê bandorê li ser hemû civaka Misrê, û ne dûre ku li ser rewşa welatên cîran jî danê.

Misrê pir caran rola pêşengtiya welatên Erebî lîstiye. Piraniya deselatdarên welatên Erebî bi awayek bi guman nêzîk Îxwan û siyaseta wê dibin. Ew guman bi siyaseta Îxwan El Muslimîn ya ku ji bo ava kirina şêweyek nû ya Xelafetê ku navenda wê Qahire be hê zêde xurt dibe. Siyaseta ku li bin bandora Îxwanan bi rêve here, wê ne bi dilê wan be. Ji deselatdaran bi der, di civakê de jî rêbaza olî ya li derveyî siyaseta Îxwan bê bandor nîne. Ew jî dikare pêwendiya welatên Erebî bi Misrê re li gel astengiyan rûbirû bike.
 Asta belengaziyê li Misrê gelek bilind e. Piraniya civakê li bin hêla hejarî û gelek ji wan jî li bin hêla birsîtiyê de dijîn. Hegerê serekeye dijberiya xelkê bi rêjîma Mubarek re ew yek bû. Bi belengaziyê ve girêdayî, mijara bêkariyê ye.
 Daxwaza sereke ya wan xort û keçên ku li meydana Tehrîr ya Qahirê li dijî desthilata Mubarek serî hildan, başkirina rewşa abûrî û pêkanîna derfetên kar ji bo piraniya civakê bû. Di rewşa abûriye îro ya Misrê de ne mumkîne ku ew daxwazî were cîbi cî kirin. Ew jî dikare weke yeke din ji astengiyên li ser riya serokkomarê nû xwe nîşan bide.

Pêvajoya ku ji niha û pê ve destpê dike wê di nava 2-3 salên li pêşiya me û beriya ku dewrana yekê ya serokkomariya Morsî bi dawî dibe nîşan bide ka gelo xelkê Misirê wê bi hilbijartina xwe kêfxweş bin an xwezîka par û pêrar bixwazin.
 Lê pêvajo ber bi kîjan alî ve here, encama hilbijartinên Misrê nîşan da ku nexweşiyên piştî qonaxa dîktatoriyê bi guherîna rêjîmê re taze derdikevin. Gelo ew nexweşî wê laşê pir ji birîne civakên Îslamî ji kar bixin an riya rabûnek nû vekin, wê dema pêşiya me nîşan bide.

## Piştî 200 salan kitêba Melayê Erwasî peyda bû

**Nûçegehaniya Kurdpayê eşkere kir ku kitêba pizişkî ya Melayê Erwasî ku 200 sal berî niha bi destê xwe nivîsandiye û Celadet Bedirxan jî di serdemê xwe de, di hijmara 33 ya Govara Hawar de gotarekê bi nave Kilasîkên kurdistanê de, bas ji Melayê Erwasî û kitêba wê dike û eşkere dike ku niha tu zaniyariyek li ser cihê ragirtina kitêbê di berdest de nine.**
 Melayê Erwasî xelkê bajarê Mîks ya ser bi parêzgeha Wanê li kurdistana Bakur bûye, navbirî kitêba xwe ku liser babetên pizişkî weke; nesaxiyên giştî û derman û careseriya wan, nesaxiyên cinsî, çav û herweha çêkirina curên dermanên giyayî bi şêwaza teorî, bi zimanê kurdî (zaraweya kurmancî) nivîsandiye.



## Amerîk û 20 welatên din manorekê li Kendawa Fars lidar dixin

**Çavkaniyên nûçeyan eşkerekirin ku Amerîka tevlî 20 welatên din, di heyva Sebtembera dahatî de, manorek bihêz û mezin ya rakirin û jinavbirina mînan li Kendava Fars de birêwe dibin.**

Berdevkê Wezareta bergiriya dewieta



Amerîkayê roja sêşemiyê ragehand ku manora han li 16 heya 27ê, Sebtembrê birêve diçe û armanca lidarxistina evê manorê berewamî ji azadiya hatuçûnên keştiyanê di avên navnetewî li rojhilata navîn de.

Di daxuyaniyekê de ku ji Navenda Fermandehiya Hêzên Amerîkayê hatiye weşandin hatiye ku, seba rêgirtin ji gefên sazî û rêxistinên tundajo ku dixwazin avên navnetevî weke Behrol Ehmer, Kendava Eden û Kendava Emanê mînrêj bikin, manora weha mezin vê birêve biçe.

# Serînetevandin waneya rêberekî mandînenas bo Hizba Demokrat





Rambod Lutfpûrî

Merc nine her kesek di şoreşê de beşdar be xwedî kesatiyek şoreşvanî be. Eve rastiyeke ku hemû şoreşgêrên cîhanê li xwe digire. Herçend li nêrîna siyasî ve hemû beşdarên şoreşê bi kesatiyên şoreşvan tên pênase kirin, lê şoreşgêr di dîtingeha derûnnasîiya civakî ve û bi baweriya kesên weke ''Erîk Firom'', ew kese ye ku mebestdarane û bi bawerî ve tevlî şoreşê dibe.

Wate helwesta wî/ê piştqahîm e bi meirîfeyekê ku jêre bûye bewerî û di hizr û bîra wan de reh û rîşala xwe dakutiye. Lewma kesatiyê şoreşgêr baweriyek qahîm bi xwe û rêbaza xwe heye û di rewş û kavdanên herî dijwar de jî tûşî lerizîn û paşgezbûnê nabe.

Taybetmendiya han rengvedanek berbiçav di kesatiya Dr. Qasimlo de heye. Dr. Qasimlo rêberiya bizavekê dikir ku gelek ewraz û nişîv dîtine, gelek qonaxên serkevtin û şikistê ceribandine, gelek xortên biwêr û kesatiyên mezin pêre bûne ku beşek ji wan yan şehîd, yan birînadarû kêmendam bûne, yan di qonaxek ji qonaxên dijwar ya xebatê de tûşî bêhêvîtiyê bûne û karwanê xebatê bi cih hêlane, cuda ji wan kesan ku bi neçarî û dûr ji vîn û xwasta xwe ji refên xebatê dûr ketine.

Yek ji sedemên vê bicih hêlanê jî dikare li nebûn yan jî lawazbûna baweriya şoreşgêrane di wan kesan de be. Wate beşek ji wan kesan xwedî vê kesatiya şoreşvanî nebûn û hinek sedemên lawekî ew derbasî nav şoreşê kirine.

Di rewşek weha de ye ku kesatiya hedaneder ya Dr. Qasimlo baştir derdikeve holê. Lênihêrîn û hawrîdanek bi ser helwest û biryarên Dr. Qasimlo di qonaxên cuda yên xebata Hizba Demokrat de, tabloyek ji însiyatîv û qerara şoreşvanî a rêberekê nîşanî me dide ku niha jî bandor li ser xebata partî û netewa xwe de heye û bûne waneya rêbazek şoreşvanî.

### Çend mînakên dîrokî

Piştî serkevtina şoreşa Îslamî û li demekê de ku got û bêjên dewleta demî ya Îranê û aliyê kurd bona dabînkirin û bidestveanîna mafên netewa kurd di Îranê de bêencam dimîne û rejîm biryara şer û cîhadê dide, dr. Qasimlo wekî rêberê Partiya Demokrat û şoreşa netewî a Kurdan li vî perçeyî de, tevî wê ku haydarê newekhevî û nehevsengiya hêzê û bihêzbûna dujminê xwe bû, lê biwêrane biryara berxwedan û berevaniya çekdarî dide. Nemaze piştî dagîrkirina bajar û gundên Kurdistanê ji aliyê hêzên rejîma Îranê û paşdekişyana neçarî ya hêzên kurdan bo derweyî welat jî, dîsan teslîm nabe û digel bêhêvîtiyê berbirû nabe, belkî alaya şoreşê her bilind radigire û dibêje: Bi baweriya min eva ku bo şoreşgêrekê girînge ew e ku nabe tu demekê şermezarê wijdana xwe be û dibe herdem bikare îdea bike ya ku ji dest hatibe di pêxema şoreş, azadî û rizgariya nîştimana xwe de encamp daye.

Agirbenda navbera Îran û Îraqê, metirsiyek mezin xiste ser bizava rizgarîxwaziya gelê Kurd li başûr û rojhilatê Kurdistanê û egera şikest û têkçûna tevgera Kurdî li her du parçeyên Kurdistanê de bûye qapûsa xewna azadîxwazên kurd. Tirsa ji bazerganîkirin bi doza kurd ji aliyê her du dewletên Îran û Îraqê ve, beşek ji rizgarîxwazên kurd û nemaze serkirde jî tûşî meraq, dudilî û bêhêvîtiyê kir. Lê di wê rewşê de jî Dr. Qasimloyê rêber bi jêhatî û zîrekiya xwe, şiroveya rewşê dike û dibêje; Niha hekî dîrok dubere bibe û ew welatên ku Kurdistan bi ser wan de hatiye parve kirin, carek din jî bona herifandina tevgera nîştimaniya gelê kurdistanê lihev bên (herçend ku îmkana karek weha kêm e), dive kurd çi bikin?

Di rewşek weha de, bi tenê riyek ji kurdan re dimîne, ew jî ev e ku yek bigirin û bi tewahiya hêza xwe berevaniyê ji xwe bikin. Bi eşkere dibe bibêjîn ku vê carê bas ji aşbetal xwe radest kirinê di rojevê de nine. Berevanî û berxwedaniya gelê kurd li gund û bajarên kurdistanê her dirêjî heye û ji hemû metodên xebatê mifah tê wergirtin.

Îro tevgerek bi tewahî rêxistî û sazimandayî bi rêberiyek şoreşvan ve li kurdistanê di rojevê de ye.

Xwebawerî û pişt qahîm bûn bi hêza şoreşê, ji wan taybetmendiyên şoreşgerane bû ku bi tewahî li hizr û kiryarên Dr. Qasimlo de reng vedabû, lewma di gel vê ku bi lêzanî û şarezayî ve mifah ji hemû fakterên derekî û navxweyî bona pêşxistina tevgerê distand û xwedî dîplomasiyek bihêz bû bo pêkanîna peywendiyên di navbera hêzên kurdistanî, Îranî, deverî û cîhanî de, lê berî her tiştî giringî bi hêza netewa xwe dida û digot: "Di pêş de bila em girîngiyê bi hêza bêdawî a gelê kurd bidin û li xwe û xebata xwe xatircem bin û weke fakterekî serbixwe li qada siyasiya welat de xwe derbixin, wê demê ê piştewanên me zêdetir bin û zemîne û zurûfa serkevtinê jî baştir berhev dibe''.

Dr. Qasimlo hem li gor pêgeha civakî a xwe û hem jî li gor pêgeha zanistî û siyasî a xwe dikarî cih û pileyek baş û bilind ji deshilata Îranê yan aliyê kêm li Ewropayê de hebe, lê em dibînin ku bi fîdakarî û moralek şoreşvanî ve li Kurdistan û çiyayên wê de dimîne û hembêza Qendîl, hevaletiya pêşmergan û jiyana dijwar ya partîzanî hildibjêre. Dr. Qasimlo gelek caran bi eşkere bas ji armancên xwe û PDK Îranê dike û bi xelkîbûna wan daxwazan dixe pêş çawan. Bo mînak dema got û bêjên bi dîplomat terorîstên Komara Îslamî re li bajarê Viyenê, di bersiva nûnerên Îranê de ku daxwazê jê dikin desta ji Xudmuxtarî (otonomî)ê hilbigre, dibêje: Eva nemumkin e ku çavpoşî ji peyva xudmuxtariyê bê kirin. Peyva han bo gelê kurd watayek atifî û dîrokî heye. Peyva han sembolîk e.

Yan carek din û di got û bêjek din bi ''Atîfe Gurgîn'' re dibêje: ''Em li ser vê baweriyê ne ku piştî ceribandina du deshilatên serberedayî û tund û tûj ên Paşatî û Xumênî, êdî dema wê hatiye ku sîstemek demokratîk li Îrannê bihê avakirin, em amade ninin digel tu hêzek alîkarê dîktatoriyê hevkar bin û di bingeh de em her terze dîktatoriyekê red dikin. Em dixwazin bi yekcarî dawiye bi kombûna desthilatê li Tehranê bînin''. Ev û gelek nimûneyên din nîşanderê vê rastiyê ne ku serhildana Dr. Qasimlo dûr bûye ji har terze mebestek takekesî, yaxîbûn bûye ji deshilata serberedayî, belkî serhildan bûye di pêxema bidestveanîna hin mebest û armancên giştî bi taybetî mafên pêpeskirî ên neteweya bindestê kurd.

Di dawiyê de em dikarîn bibêjin ku jêhatiya siyasî, însiyatîv û bawera qahîm a Dr. Qasimlo bi xebat û rêbaza xwe, kesatiyek rijd û dahêner jê ava bû ku qonaxên herî dijwar yên xebatê jî ew nexist qedeman û nesrewtû û bi lêzanîn ve cemeda bêhêvîtiyê dişkand û riyên nû vedikirin. Di heman dem de ev kesatiyê hedaneder bandorek wusa li ser xebata partî û netewa xwe danî ku waneya nesrewtin û hedanedan û berxwedanê kire hêma û nîşana man û hêvênê serkevtinê.



## Dr. Mehmûd Usman, bi boneya salvegera terora Dr. Qasimlo Peyamek weşand

**Bi boneya 23'mîn salvegera terora Dr. Qasimlo û hevalên wî, birêz Dr. Mehmûd Usman Parlemantarê Kurd yê Parlemana Îraqê peyamek weşand.**

**Deqa peyamê ev e:**
Li 13'ê Tîrmeha 1989'an, dema ku bi nav got û bêj bi awayê veşartî li navbera Partiya Demokrat û nûnerên Tehranê li "Viyen"ê li rojevê de bû, şanda Kurdî ku ji Dr. Qasimlo, Ebdulah Qadirîazer û Fazil Mela Mehmûd pêk hatibû, bi destê şanda Îranî hatin şehîdkirin.

Kiryarek ku dijî hemû pirensîp, exlaq, yasa û şerîetan bû. Hikûmeta Utrîşê jî bi şandina tawanbaran bi rêz û hurmet ve bo Tehranê, bû şirîkê tawanbaran û civaka navnetewî jî bêdeng ma!.



Em li demekê de ku serê rêz û hurmetê li hember wan şehîdan ditewînin, hêviya serkevtinê bo hemû Partiyên Rojhilata Kurdistanê dixwazin û daxwaz ji Partiya Demokrat bi taybetî û aliyên din bi giştî dikin ku di vê bîranînê de hemû hewlên xwe bidin ji bo yekxistina refên xwe û xebat di pêxema gihîştin bi armancên gel li ser asta Îran û Kurdistanê.

Serbilindî û nemirî bo şehîd Qasimlo û hevalên wî.

## Daxuyaniya "ENKS" bi boneya 22'ê Pûşperê




**Encumena Nîştinamî a Kurdî Li Sûriyê bi boneya 23'mîn salvegera terora "Dr. Qasimlo" daxuyaniyek belav kir.**
Deqa daxuyaniyê bi vî awayî ye:
Bi navê Encumena Niştîmanî a Kurdî li Sûriyê/çiqa Siwêdê, salvegera nemir "Ebdulrehman Qasimlo" bi dilekî xemgîn, li gel hevalên Partiya Demokrat a Kurdstana Îranê parve dikin.
**Rêzdarên Hêja!**
Miletê Kurd bi dehan qehreman di riya tekoşîn û azadiyê de wunda kirine, belê ew qehreman bûne mîna çirakê di kar û xebata pêşeroja miletê Kurd de.

**Rêzdaran!**
Miletê kurd ku kesên wek tekoşerê nemir "Ebdulrehman Qasimlo" ji nav derket, wê rojeke her azad û serkeftî be.
Sersaxî bo Hevalên Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê û her weha bo miletê Kurd bi tevahî.
**Encumena Niştîmanî a Kurdî Li Sûriyê/ Siwêd 15'ê Tîrmeha 2012**

## Destbiserkirina cinayetkarê cengî li Mecarîstanê

**Pişrî gengeşeyên zaf, Dezgeha Qezayî ya Welatê Mecarîstanê ragehand ku, Laslo Çatarî, cînayetkarê Nazî hat desteserkirin.**
Laslo Çatarî bi desthebûn di kuştara bi dehan hizar cihûyan di şerê Dûyem a cîhanî de hatiye tometbarkirin. Ev cînayetkarê cengî ku di temenê 97 saliyê deye, bi salan li bajarê Budapêştê bi avayek eşkere jiyana xwe dikir û navendên cihpyên Avrûpayê jî, ji desteserkirina navbirî ji aliyê dezgeha Qezayî ya Mecarîstanê bê hêvî bibûn.



## Bo Yekem jinek bû seroka Yekîtiya Afrîqayê

**Wezîrê navxwe yê Afrîqaya başûr, ku hevjîna berê ya Serkomarê niha ya vî welatî ye, weke yekem jin di dîroka Yekitiya Afrîqayê de, bi serokatiyê re hat hilbijartin.**
Nûçegehaniya Almaniyayê regehand ku, hilbijartina vê weke meqama herî bilind ya Afrîqayê, ji aliyê dewlet û opozisyona Afrîqaya Başûr ve hat pêşwazîkirin.
Ev jina 63 salî dîplomatek jêhatiye ku di şer li dijî apartaydê de rplek girîn lîztiye û herweha navbirî weke wezîrê behdaşt, wezîrê navxwe ş wezîrê karubarên derwe ya Afrîqaya başûr de xizmet kiriye.

Rojev



# Bahoza Xwê, diyariya rejîmê



Arif Vêlzî

Gola Urmiyê mixabin niha li rewşek hestiyar û metirsîdar de dijî û nefesên dawîn ên xwe dikişîne. Ji ber ku piştî hatine serkara rejîma Komara Îslamî li Îranê de em dibînin ku ne tenê tu girîngiyek bi avedanî û parastina xweza û jingehê bi taybetî li Kurdistanê nehatiye dan, belkî gelek caran jî bi awayek rasterast bûne sebeba jinavçûna bedevî û jîngeha kurdistanê.

Gola Urmiyê jî yek ji wan sermayeyên niştimanî ye ku ji ber guhnedan û siyasetên dijîgelî û neberpirsane ên rejîmê niha bûye rojeva medya û ragehandinên cîhanî. Ji ber ku encamên xirab û pirr metirsîdar ên hişikbûna wê bûye gefek micid li ser xweza û rûniştiyên derdora Urmiyê.

Mixabin siyasetên dujminkarane ên rejîmê li dor rêberî û kuntirol nekirina bikaranîna avên bin erd û ser erd ên derdora behra Urmiyê, avakirina avbendan li ser çem û rûbarên herikî bo nav Golê û herweha avakirina pira bikuj Kelanterî li ser golê ji sedemên serekê ên çêbûna vê tirajîdiya jîngehî tên hesibandin.

Her çiqas ku kêmbûna rêjeya baran barînê û bilind bûna pileya germê jî bi xwe fakterek din ya hişikbûnê ye.

Bi her hal ji ber wan fakteran ve em dibînin ku di heyamê 15 salên derbazbûyî de 6 metir ji ava Gola Urmiyê dakewe û ber bi hişk bûnê ve biçe û vê rewşê biafirînin ku niha behra Urmiyê têde dijî. Wate karesat û tirajîdiyek mirovî li rê de ye ku zirarên wê nahên qerebû kirin.

Ji ber ku şûnwarên hişikbûna gola Urmiyê niha bi awayek berbiçav dixuyin û vê yekê jî bandor xistiye ser jiyana xelkê li deverê û heya niha çendîn gundên dewbehrê hatine valakirin.

Pisporan daye zanîn ku hişikbûna Gola Urmiyê, 10 milyard ton xwê dê li xwe bi cih bihêle û di encama ba u bahozên demsalî de, weke toz û dûmanê wê biser xelk û deverê de bibare û piştî derbasbûna çend salan xincî jinav çûna kar û erdên cotkariyê, û herweha jîngeh û xwezaya wan deveran, di demdirêj de wê bibe sebeba serhildana nesaxiyên weke penceşêr û gelek nesaxiyên din.
Di çend rojên derbazbûyî de me dît ku bi rabûna bahoza demsalî a ba, ku niha bi dûmana xwê tê naskirin, bi awayek berfireh xwê bi ser deverê de barandiye û canê bi milyon kesan xistiye bin bandora xwe. Hekî bi vî awayî biçe pêş, di dahatiyek ne dûr de wê xelkê deverê neçar bibin ku mal û halên xwe bi cih bihêlin û ber bi bajar û deverên din ên Îranê koçber bibin û nexwastî zirarên zaf ên canî, madî û jîngehî bipejirînin.

# 22' Pûşperê li binkeya Deftera Siyasî, Nawendên 1 û 3 yên Kurdistanê de hat bibîranîn

**Rê û resma 22'ê Pûşperê, 23'mîn salvegera terorkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî, li her yek ji binkeya Deftera Sıyasî, Nawendên 1 û 3 ên Kurdistanê bi awayê cuha birêve çûn.**

Roja 12'ê Tîrmeha 2012'an, rê û resma han bi beşdariya birêz "Mistefa Hicrî" Sekreterê Giştî, endamên rêberî, kadr, pêşmerge û malbatên wan li salona giştî a rê û resmên PDK Îranê hat lidarxistin.

Bi kurtî bigeyên merasîma binkeya Deftera Siyasî:
- Sirûda netewî a "Ey Reqîb" û deqîqeyek bêdengî bo canê paqije şehîdan
- Peyama Deftera Siyaî a PDK Îranê, ji aliyê kak Têmûr Mistefayî ve



- sirûdek bi navê "Xorî Zêrîn" ji aliyê korsa Korra Hunerî ve
- Pêşkêş kirina helbestekê li jêr navê "Giryanêkî Şin" ji aliyê helbestvan, "Buhar Husênî" ve
- Peyama hevpar a Yekîtiyên Jinan, Lawan û Xwendekarên Demokrat ên Kurdistana Îranê ji aliyê birêz "Fuad Xakîbeygî, Sekretyerê Giştî yê YCDK Îranê ve.
- Pêşkêş kirina helbestekê li jêr navê "Ey qasimlo Ey Hemîşe Rêber" ji aliyê helbestvan "Gullbax Behramî"
- Pêşkêşkirina helbestek li jêr navê "Landik û Destar" ji aliyê Ceifer Mubeşirniya ve.
- Sirûda "Pîre Şax" ji aliyê kora hunerî ve

**Bi heman munasibetê bervar 11'ê Tîrmeha 2012'an, rû û resmek bi beşdariya birêz Tahir Kesîlî, Endamê Komîteya Navendî yê PDK Îranê û Berpirsê Navenda 1'a Kurdistanê, Kadr, Pêşmerge, malbatên wan û hejmarek enmdamên PDK Îranê li hewlêrê,li Nawneda 1'a PDK Îranê birêve çû.**

Rê û resmê beşên han li xwe girtibûn:
- Sirûda netewî a "Ey Reqîb" û ragirtina xulekek bêdengî bo rêzgirtin ji canê paqije şehîdan
- Peyama Naweda 1'a Kurdistanê ji aliyê birêz Tahir Kelîsî ve.
-Peyama hevpar a komîteyên Jina û Lawên Demokrat ên Kurdiatan Îranê li Dêgele, ji aliyê birêz "Buhar Rostemî" ve
- Pêşkêşkirina çendîn parçe sirûd û pexşan ji aliyê hunermend û helbestvanan Nawenda 1 ve.

**Herweha 22'ê Pûşperê, 23'mîn salvegera terorkirina Dr. Qasimlo bi destên dîplomat terorîstên rejîma îslamî a Îranê roja 10'ê Tîrmeha 2012'an li Navenda 3'a Kurdistanê bi beşdariya birêz "Sidîq Derwîşî" Endamê Komîteya Navendî û berpirsê Nawenda 3'a Kurdistanê, hejmarek ber bi çav ji kadr, pêşmerge û malbatên wan birêve çû.**

Rê û resmê bi sirûda netewî a "Ey Reqîb" û ragirtina xulekek bêdengî bo canê paqije şehîdan destpê kir. Birgeyên din bi vî awayî bûn:
- Peyama Nawenda 3'a Kurdistanê, ji aliyê birêz Sidîq Derwîşî, Berpirsê wê nawendê ve
- Sirûdek li jêr navê "Rabûn" ji aliyê korsa Korra Hunerî a PDK Îranê ve
- Helbestek bi navê "Qasimlo mezintir ji Çavnihêriyê" ji aliyê birêz "Husên Hesenniya" ve
- Peyama hevpar a Yekîtiyên jinan û Lawên Demokrat ên Kurdistana Îranê ji aliyê birêz "Yûnis Gageşî" ve
- Pêşkêş kirina helbestek bi nave "Yadî Hetaw" ji aliyê birêz "Qadir Kerîmî" ve
- Xwendina sirûdek li jêr navê "Qasimlo" ji aliyê Korra Hunerî a PDK Îranê ve





# Kurdistan, bêkarî û kolberiya neçarî



Ferşîd Neqşefken

Armanc ji nivîsîna vê gotarê eşkerekirina siyasetên şovenîstî û pirr ji ferq û cudahiyên hikûmta navendî ya Îranê derbarê Kurdistanê de ye. Parêzgeha Kurdistan (Sine) zêdeyî 250 kîlometr sînorê hevbeş ligel Îraq û Herêma Kurdistanê heye. Di şerê 8 salî yê navbera Îran û Îraqê de, ku bû sedema paşketina vê parêzgehê li gor welayetên din, ji hemû faktorên pêşveçûna aborî û pîşesazî hat bêparkirin. Kurdistan ji Kargeh û fabrîkayên senetî û sermiyandayînê di warê aborî de bi tevahî hat bêpar kirin û beşa herî zêde ya sermayeyên dewletê bo herêmên din hat terxan kirin û her 4 parêzgehên Kurdistanê ku çavakaniyên binerd û xakek dewlemend heye, ji ber siyaseta asmîlasiyon û nêrînên ewlehî yên rejîmê hat mehrûm kirin.

Aboriya Parêzgehên Kurdistanê li gor pîvanên pêşveçûna aborî, ligel ne wekheviyek eşkere berbirû ye.

Bo mînak, di warên aborî û kulltûrî de, welayeta Kurdistanê di rêza dawîn a parêzgehên Îranê de cih girtiye. Di sala 1385 (2006)`an de, dahata serane a giştî li vê parêzgehê de, 1 milyon û 570 hezar tûmen bûye, lê di rewşekê de ku navinca giştî ya Îranê 3 milyon û 380 hezar tûmen hatiye texmînkirin.

Li gor vê statîstîkê, dahata serane û giştî ya parêzgehê tenê ji sedî 4.46`ê dahata giştî a welat e.

Ji aliyekî din em dikarin bêjin ku bêkarî û nebûna derfetên kar li herêma Kurdistanê de yek ji cudahîdanînên neteweyî ye ku wek zilmê tê xuyakirin. Hinek lêkolerên pirsa neteweyî bawer in ku pirsgirêka bêkariyê li Kurdistan û herêmên ku neteweyên Îranî têde dijîn, ji siyaseta ferqkirin û cudahîdanîna neteweyî çavkanî digire. Li navçeyên Kurdistan û Sîstan û Belûçistanê de bêkarî pirr zêde ye û derfetên karkirinê kêm in û sermayedanîna aborî di rêjeya herî kêm de ye. Dewleta Îranê her ji destpêkê ve ew siyaset li ser wan herêman ferz kirin.

**Bêkarî di nav neteweyên bindest de zêdetir e**

Rêjeya bêkariyê li parêzgehên Tewrêz, Urmiye, Kurdistan (Sine), Kirmaşan, Îlam, Xûzistan û Sîstan û Belûçistanê du hejmarî ye, lê li pirraniya welayetên din rêjeya bêkariyê kêmtir e ji van herêmên navhatî. Dorpêçên aborî yên vê dawiyê hejmara bêkariyê li seranserî Îranê de pirr zêde kiriye, bi heman awayî li herêmên nefars de gellek pêtir bûye û bûye kirîzek metirsîdar a aborî û civakî ku gefê ji jiyana bi milyonan însanan dixwe.

Belavkirina serhejmariyên nerast û dijhev derbarê bêkariyê û derfetên karî, wusa kiriye ku heta rayedarên rejîmê li wan parêzgehan de jî ji van statîstîkan bi guman bin. Armanca wan tenê nizim nîşandan hejmara bêkariyê di welat de ye, lê rastî û pirsgirêkên aborî û civakî tiştek din derdixin holê.

Her diçe hejmara bêkariyê li herêmên niştecihbûna neteweyan li Îranê zêdetir dibe û pisporên aborî sedemên vê vedigerînin ser siyasetên şovenane ên desthilata Îranê li parvekirina newekhev a serwet û samanên giştî, nebûna rêveberiyek durist û bikar neanîna şareza û pisporên xwecih li deverên ku netewên bindest lê dijîn û bi nêrîna ewlehî temaşekirina bi wan herêman û siyasetên klasîk û kevin ên aborî.

Ev yek bûye sedem ku ciwanên Kurd û neteweyên din bi neçarî koçberî bajarên din bi armanca peydakirina kar û bijîva jiyanê bibin. Ji aliyekî din ve beşek zaf ji ciwanên kurd neçarin rû ji karên giran, dijwar û metirsîdar ji bo dabînkirina debara jiyana rojane a xwe bikin ku karê kolberiyê yek ji wan e.

**Kolberî ne hilbijartinek e, belkî karek neçarî ye**

Kolberî ku xebatek pirr dijwar û xeter e, ne karek hilbijartî ye ji bo ciwanên kurd, belkî karek neçarî ye. Ger derfet û îmkana karên fabrîke û xebatên din ên normal li Kurdistanê hebûna, bêşik ciwanên ku niha mujûlê kolberiyê ne û riyên dijwar bi nirxê jiyana xwe didin pêşiya xwe bo peydakirina nanê jiyana rojane, dê ew kar bikirina.

Lê ji ber bêkarî û xizanî û hejariya zêde neçar in bi nirxê jiyana xwe vî karê dijwar encamp bidin û her roj mirinê bi sed car li pêş çavên xwe bibînin.

Ji ber ku her roj em şahidê kuştin û birîndarkirina kasibkar û kolberên kurd in bi destê hêzên Komara Îslamî li ser sînorên Kurdistana Îranê. Yan jî roj nine ku nekewin ser mayînên çandî ji aliyê hikûmeta Îranê ve û nehên kuştin yan kêmendam nebin.



Hevpeyvîn: Arif Vêlzî

Kak Quwet:

# Azadî nêzîk e, çûnkî Komara Îslamî li ser kendalê herifînê ye û ez jî hez dikim ku azadiyê bi çavê xwe bibînim.



Zafin ewên ku di pêxema serbestî û serbilindiya gelê xwe de çepera pîroz a xebat û pêşmergatiyê hilbijartine û di vê riyê de jî yan şehîd ketine, yan jî hêj bo azadiyî li vê çeperê de berxwe didin. Ger mirov bê û rûpel bi rûpel û roj bi roje jiyana wan hilde, her yek ji wan hilgirê sedan pirtûk û fîlm û destanrêsan in û hewce dike ku mîna roniya çavan bên parastin, lê dixuye ku carê pêvajoya vê xebatê dê carê berdewam be û ew îmkan carê neafiriye. Lê bêguman dê ew roj bê ku hesreta dilê wan û çavniheriya çendîn saliye wan bi cî were û ala rizgarî û azadiyê bi destê xwe li ser çiyayên bilinde Kurdistanê biçeqînin.

Ehmed Sembolî kurê Mihemed naskirî bi Mam Quwet, sala 1955an, li gundê Nella ya ser bi bajarê Serdeştê hatiye dinê.
Ji ber nebûna qutabxanê di serdemê zarokatiya xwe de, ji xwendinê bêpar dibe, lewma her di temenê zarokatiye xwe de mijûlê karê cotyarî û ajeldariya malbata xwe dibe.

Kak Quwet çawaniya nasyariya xwe bi PDK Îranê re weha vegerand; Ez li malbatek şoreşavan û xebatkar de mezin bûme. Babê min bi dirêjahiya temenê Komara Kurdistanê, wate midehê 11 mehan pêşmergeyê Komara Kurdistanê bûye. Piştî hiloşîna Komara Kurdistanê û serhildana tevgera 46, 47'an birayê min ê mezin bi navê mihemed tevlî şoreşê bibû û digel Mela Aware û Simayîl Şerîfzade û hevelên xwe dest dabû xebata xwe ya siyasî di pêxema azadiya netewa xwe de. Ew têkiliya malbatî a me bi şoreşê û PDKÎ re bibû sedem ku ez jî bi başî haydarê vê şoreşê û jiyana pêşmergan bibim.

Mam Quwet derheq tevlîbûna xwe bi refên pêşmergên Hizba Demokrat re weha got: Piştî şoreşa gelên Îranê, PDK Îranê jî li gundê BinewXelef a bajarê Serdeştê Komîteya xwe ava kir, piştî mideheкê min xwe bi komîteya partiyê nasand û bi awayek fermî ez bûme pêşmergeyê PDK Îranê.

Kak Quwet niha di 57 saliya temenê xwe de ye. Ew hêj nezewiciye, û jiyana pêşmergatî û şoreşvaniya xwe bi derfet nezaniye ku bizewice, lê hêj bêhêvî nebûye û her dilterr û geşbîne bi pêkanîna jiyana hevpar û piştî azadiyê çavnihêriya bextek wusa ji xwe re dike.

Quwet derbasî nav rûpelên jiyana xwe bû û got: Hemû jiyana min nexweşî bûye, gelek caran ez ji şer û awareyî yê mandî û di hundur de jî xemgîn û dilteng dibûm, lê dema RDK Îranê gazî dikir ''Serinc bidin'' û serkrvtin û operasiyonek pêşmergeyan ji xelkê kurdistanê re bas dikir, ez vedigeşiyam û min enerjî, hêz û aramiyek derûnî distand.
Wî di jiyana xwe de rojên nexweş pir dîtine, lê yên herî tal, şehîd ketina rêber Qasimlo û Dr. Şerefkendî da zanîn. Hekî yên mîna min şehîd ketiban, pirr girîng nebû, ji ber ku kesên din bi hêsanî dikarin cihê me bigrin, lê şehîd kirina rêberan xesarek gelek mezine ku cîgirtina wan hinekî zehmet e. Lê li mekteba şehîd Qasimlo de kesên weha perwerîne ku nahêlin partî û xebat bikewe qedeman. Bo mînak gelek kesên weke Kak Mistefa Hîcrî û Kak Rostem Cehangîrî û ... dewsa wan girtine.

Quwet bi şanazî ve basa karê xwe li partiyê de kir ku heya niha karê çapeziyê dike, her ji serdemê Dr. Qasimlo ve heya niha. Li vê derheqê de got: madam ku ji bo pêşmergan e ez amade me her karî bikim, lewma bi dil û can ve ez karê xwe dimeşînim heya ku bikarim li ser piyan bisekinim wê berdewam bimînim.
Kak Quwet li dawiyê de weha axivî: ''min jî her weke bab û birayê xwe tewahiya temenê xwe di pêxema rizgariya netewa xwe de derbaz kir û seba vê yekê pir keyfxweş im û şanaziyê bi rêbaza xwe dikim, lê bila tu car lawên kurd rêbaza şehîdan ber nedin, ji ber ku azadî nêzîk e, çûnkî Komara Îslamî li ser kendalê herifînê ye û ez jî hez dikim ku azadiyê bi çavê xwe bibînim.

## Min jî her weke bab û birayê xwe tewahiya temenê xwe di pêxema rizgariya netewa xwe de derbaz kir û seba vê yekê pir keyfxweş û şanaziyê bi rêbaza xwe dikim





Xalîd Mehmûdî, kurê Sofî Elî Çiyane, sala 1334'ê li gundê Soxalwê ya ser bi bajarê Pîranşarê hatiye dinê.

Piştî derbasbûna çend salan mala xwe bar dikin û diçin gundê Çiyane. Li wir bona vê ku malbata Kak Xalid xwedî erdên cotyarî û Çaxaneyekê bûne, Karê malbata xwe dabeş kirine, lewma karê cotyariyê dikeve ser milê Xalid û çayxane jî bo birayê wî. Heya temenê 16 saliyê mijûlê cotyariya xwe dibe û paşan daxwaz jê tê kirin ku biçe serbaziyê, piştî dîtina dewreya fêrgehê li padigana Ecebşêrê tevlî 17 kesên din bi dana bertîlê ji eskeriyê hatiye miaf kirin.

Kak Xalid sala 1352'ê li gundê Çiyane digel Menîc Mela Emînî jiyana hevpar pêk aniye û berhema zewaca wan dibe sê kur û sê keç. Kurek min ku niha endamê rêberiya partiyê ye û yekî din jî li nexweşxana partiyê de mijûlê xizmetê ye. Ez gelek şanazim bi wan ku rêbaza min û bapîrê xwe û şehîdan wunda nekirin û li çepera xebat û berxwedanê de ez bi tenê nehiştim.

Bavê Kak Xalid ji sala 1341'ê pêşmergeyê PDK Îranê bûye, lewre malbatî têkilî û hevnasê partiyê bûne. Bavê wî heya sala 1373'ê, anku heya dema ku baregehên partiyê ji Qendîlê daketin xwarê û li deşta Koyê de akincî bûn, her pêşmergeyê partiyê bûye, lê seba kaliyê li ser îzna pertiyê dest ji pêşmergatiyê kişand û vegeriya Îranê. Lewma seba vê têkiliya malbatî bi PDK Îranê re, kak Xalid jî di sala 1362'an de bi fermî bûye pêşmerge û li refên partiyê de dest daye xebat û tekoşîna xwe ya siyasî.

Birêz Mehmûdî derheq bîranînek xwe ya xweş got ku; sala 1357'ê Kak Dr. Qasimlo bo seredana meqerên partiyê li gundên Qelatê, Cerranê, Yêmin Abad û herweha avakirina meqerê partiyê li gundê me hat deverê, piştî seredana meqerên wan gundan, hat gundê me û li dû dîtina cihê ku dixwastin meqerê partiyê têde ava bikin, bi şehîd Sergurd Eliyar re hat çayxana me û bo cara yekemîn min şehîd Qasimlo di hemberî xwe de didît.

Herweha min li meqerê partiyê li bajarê Raniyê erkê xwe yê pêşmergatiyê dimeşand, wê çaxê gelek caran şehîd Dr. Seîd dihat seredana meqerê partiyê, lewma gelek caran ez gihîştime xizmeta wî û pêre rûniştime.

Derheq rojên nexweş ên jiyana xwe Kak Xalid dibêje ku; Roja şehîd ketina her du rêberên me, rojên herî nexweş ên jiyana min in, çûnkî wî çaxî medya û ragihandin weke niha bihêz nebû, lewma me wusa fikir dikir ku êdî partiya me jinav diçe û namîne, çonkî şehîd kirina wan rêberan bi qasekê bandor xistibû ser hêza pêşmerge ku tû hêvî di dilê wan de nemabû.

Kak Xalid hêvî û çavnihêriyên xwe weha bo Agiriyê anîn ziman: Hêviya min serkevtina gelê me ye li her çar parçeyan û bi taybetî li rojhelatê Kurdistanê daku zehmetî û keda me xesar nebe.

Şoreşgêrê PDK Îranê kak Xalid weke gotina davîn dibêje; daxwazê ji xelkê Kurdistanê dikim ku pişta PDK Îranê ber nedin, û tekoşîn û xebata wê bilind binirxînin û bi rêbaza şehîdan re xwedîsoz û emegnas bin. Her çend ku bi xweşî ve xelkê kurdistanê PDK Îranê dihebînin û jê xwedî derdikewin, herweha daxwazê ji lawên kurdistanê dikim ku refên şoreşê vala nehêlin û tevlî PDK Îranê bibin û şûna me pîr û kalan bigrin.

## Şehîd kirina wan rêberan bi qasekê bandor xistibû ser hêza pêşmerge ku tû hêvî di dilê wan de nemabû



# Bajarê Bokanê





Mecîd Cinîkanlû

Bokan, yek ji bajarên din yên parêzgeha Urmiyê ye. Bokan di herêmek çiyayî de cih girtiye û bi yek ji bajarên herêma Mûkiryanê tê hesibandin. Bokan ji hêla bakûrî ve tevî bajarê Miyanduavê û ji hêla başûrî ve li gel Şaristana Seqizê û ji rojihilat ve li gel bajarê Şahîndêjê û ji hêla rojava jî li gel bajarê Mihabadê ve hevsînor e.

Li gor serjimêriyan, nifûsa Bokanê 208,204 kes e. Xelkê bajarê Bokanê bi giştî Kurd in û bi zimanê Kurdî, zarawê soranî dipeyvin. Piraniya xelkê bajarê Bokanê bi karê ticaret û çandinê ve mijûl in. Lê hin ji xelkê Bokanê wek bajarên din yên ser sînor bi karê Kasibkariyê ra mijûl in.

Xelk bo bijîva jiyana xwe naçar in ku her karekî bikin û bi vî awayî debara jiyana xwe dabîn dikin. Azeriyên ku li Bokanê dijîn, hejmarek gelek kêm in û zêdetir kesên girêdayî bi dewletê û karmendên Îdareyên wê ne, lê heta niha jî herdem rijêma Îranê hewil daye bona serxistina siyaseta helandinê û herweha şikandina îradeya Kurdan, hejmara azeriyan bona akincîbûnê li Bokanê da zêdetir bike. Eve jî metodeke ji siyasetên qirêj yên dewleta Îranê dijî gelê Kurd.

Bajarê Bokanê jî wek gelek ji bajarên din yên Kurdistanê xwedî dîrokek gelek kevnar e di gelek belge û nivîsan de hatiye ku beriya 3000 salan navê Bokanê ayzbirto bûye û di wê demê da paytexta dewleta Manayîyan bûye.

Gelek tiştên dîrokî yên ku niha li mozexaneyên welatên ewropî de hene, diyar dikin ku şarstaniyeta Mannayî giringiyek mezin bi karê hunerî daye. Niha jî li gelek gund û çiyayên derdora Bokanê da berên gelek ciwan hene ku li serdema şarstaniyeta Mannayî an de hatine nexşandin.

Li ser vê yekê ku çima navê Bokanê li ser vî bajarî hatiye danîn, gelek tişt di pirtûkan de hatine nivîsîn. Lê gelek nivîskar û dîrokzanên Kurd dibêjin ku di serdema gelek kevin de ji ber ku du kaniyên mezin li nêz bajar da hebûne û ava wan gelek xweş û zêde bûye û gelek mifa gihandiye xelkê, loma xelkê wê deverê gelek caran diçûne ser wan kaniyan, ji ber ku gelek cihên xweş û dilrevîn bûne û navê (bûk)ê lê kirine ku bi derbasbûna demê ra bûye Bokan.

Hin nivîskarên Îranî jî dibêjin ku dema êrîşa Muxolan da yek jî fermandarên leşkerê Çengîzxan navê xwe daniye ser wê herêmê. Li serdemê împeratoriya Eşkaniyan li Îranê de Bokan cihek girîng bûye û niha jî bermayên ku li gelek gund û çiyayên Bokanê de hene, wê rastiyê diselimînin.
Gelek caran ji ber sedemên şer û êrîşan ve, Bokan hatiye şevitandin û wêran kirin. Dibêjin ku li serdemê împeratoriya Qacar û di dema Nasiredîn Şah de Bokan wekî gundekê bûye. Piştre bi pêşveçûnên ku li herêmê da dirust bûne, Bokan bûye bajarek xweş û gelek cihên girîng têda hatine dirust kirin.

Li şerê cîhanî ê yekê da Bokan di destê ûrisan da bûye, piştî şoreşa Rûsiya û dema ku hêzên Rûs ji Îranê çûne der, hêzên Tirik xwe li Bokanê da binecih kirin. Bokan jî wek gelek bajarên din yên Kurdistanê xwedî cihek gelek giring di serhildana rizgarîxwazî a gelê Kurdistanê de bûye.
Li serdemê Komara Kurdistanê li bajarê Mehabadê, xelkê Bokanê gelek alîkariya Komarê kirin û di rêya serbestiya netewa me da nirxên bihagiran pêşkêşî gelê me kirin. Li wî bajarî de gelek rêber û bijarte hatine nav çepera xebata rizgarîxwazî û netewî de.
Herweha bajarê Bokanê bi bajarê helbestvanan tê nas kirin. Kesên wek Mamosta Hejar, helbestvanê navdar yê gelê Kurd ji wî bajarî ve hatiye nav çepera şoreşa azadîxwaziyê û bi salan seba mafxwaziyê aware û derbider bûne.

Şehîd û rêberê gelê me Dr. Sadiq Şerefkendî jî bi eslê xwe xelkê bajarê Bokanê ye. Şehîd Selam Ezîzî ku kesatiyek naskirî û endamê polîtbîroya PDKÎ jî xelkê Bokana bûka Kurdistanê ye ku êdî niha bûne sermiyan û nirxên gel.

Ji ber wan nirxên giran, dewleta Îranê her tim hewil daye ku vî bajarî bixe bin kuntirola xwe de. Li salên berê de xelkê bajarê Bokanê li xebata xwe ya sivîl a bi dijî şehîd kirina Dr. Qasimlo de destanên mezin ji xebatê afirandin û ew yek bûye sebeb ku hertim rejîma Îranê li hewla têkdana bajêr be.

Li nava xelkê Bokanê de gelek hunermendên baş hatine nav qada mûzîka Kurdî û kesên wek Hesen Zîrek û bilûrvanê navdar yê gelê Kurd ''Qale Mere'' xwediyê cihekî taybetî li hemû beşên Kurdistanê ne.

Hunermendên ku tucarî qîmeta hunera Kurdî bi nirxên dewletî nedan û hertim li cem gelê xwe jiyan kirin û îro rojê jî li nava dilê gelê xwe de jiyanê dikin.

Her wusa bi sedan ciwanên welatparêz yên Bokanê nava Partiyên sîyasî yên Kurdistana Îranê û bi taybetî li nav PDKÎ de şehîd ketine yan niha jî li halê xebatê de ne.

Bokan herwek navê xwe bi Bûka Mûkiryanê li nav xelkê kurdistanê de hatiye naskirin û hertim piştqahîm bûye bi çiyayê Terexe û pala xwe daye xelkê welatparêze kurdistanê û li rex wan sekiniye û banga azadiya Kurdistanê dide.



# Dr. Ebdulrehman Qasimlo

## Sembol û semyanekî niştimanî ye ji ramanên Kurdî yên pêşverû re



Konê Reş



Nizanim bi vê helkeftina diltezîn a bîranîna 23 saliya koçkirina Dr. Ebdulrehman Qasimlo, çi gotinan derbarî wî bibêjim? çawa wesf û pesnê wî bidim. Tiştê ez zanim; her ku navê wî tê bîra min, pêre – pêre Kurdistana Rojhilat û navê şêx Ubêdullahê Nehrî, Simko axayê Şikakî û Ebdulrezaqê Bedirxan têne bîra min. Û her wiha navê Pêşewa Qazî Mihemed û hevalên wî, Komara demokrat a Kurdistanê li Mehabadê, têkoşerê navdar Sadiq Şerefkendî û yên mayî têne bîra min.

Dr. Ebdulrehman Qasimlo yê ku navê wî di nav Kurdan de bûye mîna sembolekê ji netew û niştimaniya kurdî a resen re. Erê ew bûye wek semyanekî ji ramanên kurdî yên pêşverû re. Û ta radeyekê, dikarim bibêjim ku hêjî pêdiviya me bi ramanên wî û kesên wek wî heye. Ji ber ku ew mirovekî mezin bû. Erê mezin bû û meznahî bi mezinan çê dibe, ku mezin nebin, meznahî nayê holê. Milet bi mirovên xwe yên mezin û bijarte re mezin dibin. Ew milet mezin e, yê ku mezinan tîne, mirovên mezin jê derdikevin.

Ji miletê Kurd jî gelek mezin derketine, dikarim bibêjim ku Dr. Ebdulrehman Qasimlo yek ji wan mezina ye.

Ew mirovekî zana bû, rewşenbîr bû, şoreşvan bû, mêrxas bû, Serdar bû, dîplomat bû, mirovhez bû, serwextî rewşa her çar perçeyên Kurdistanê bû, bi gelek zimanan zanî bû û bi wan zimanan bervedêrî di ber kêşeya miletê xwe yê Kurd de dikir.

Wî, ji geliyê Qasimlo dest pê kir, ew geliyê ku çiyayên derdorê bi saya wî geliyî xwe bi bilindahiya xwe paye û pesin dikin. Erê, Dr. Qasimlo, kurê geliyê Qasimlo bû. Di pêvajoya xwe a welatperwerî de nav û deng da û bû mîna çiyayek ji çiyayên Kurdistanê. Çiyakî bi dar û ber, bi çem û cobar, bi gelî û newal, bi heybet û saw.

Û wiha jî bû ronahiya çavên Kurdistanê, germahiya dilên Kurdên qenc. Ta ku dijminên mirovahiyê di roja 13.07.1989'an de, li Viyenayê, ew û hevalên wî dane ber çend guleyên bêbext û di encam de dest ji me kişand û çû. Bû şehîdê miletê xwe, şehîdê armancên xwe.

Erê bi bêbextî hat kuştin, jixwe wekî din nikarîbûn wî bikujin. Bi mêranî nedihat kuştin. Gelekî li pey wî geryabûn, lê ew mêrên qenc li cem wan peyda nedibûn, nedihatin dîtin ku bikevin pêşiya wî, dora wî bigrin û wî bikujin..

Sebaretî min, ez dilbijokê navdarên Kurdên xwe me. Ma ne Kurdan ji mêj ve gotiye: Her yek li ser miriyên xwe digirî. Ez jî li ser navdarên miletê xwe digirîm. û Ta ku ji min bê ezê li dor navdarên Kurdan binivîsim; huer û şanên wan ji gelê xwe re raxînim ber çavan. Lê sebaretî navdarên Kurdan, di warê dîplomatî û pêwendiyên bi gelên cîran û cîhanê re, çend kes li ber çavên min hene, ew jî mirîne, jixwe yên sax di roja îro de pirrin, mebesta min yên mirî ne ku yek ji wan Mîr Abdulrizaq Bedirxan e, yê ku di sala 1918'an de li Mûsilê ji rex Osmaniyan ve hat bidarvekirin, yê din Sureya Bedirxan e yê ku di sala 1938'an de li Parîsê di sirgûniyê de bêxwedî û Xwedan mir. Yê din Mîr Dr. Kamiran Bedirxan e yê ku di sala 1978'an li Parîsê mir û berî mirina xwe termê xwe diyarî kiribû ji fakultên Tibî re li Parîsê û yê dawî ku ez dilbijokê kar, xebat û şanên wî bûm Dr. Ebdulrehman Qasimlo ye, yê ku di rojeke mîna îro de, berî 23 salan bi destê rêjîma Tehranê li Viyenayê bi bêbextî hat kuştin. Dr. Ebdulrehman Qasimlo, yê ku hêviyên me bi kesayetî û mirovahiya wî mezin bû, ku rojekî bibe serokê Netewên Yekbûyî, lê sed mixabin wan Xwedênenasan bi hovîtî ew dan ber guleyan. Sebaretî me

**Navê QASIMLO di nav Kurdên rojava de pirr belave û gelekan navê wî li zarokên xwe kirine**

Kurdên rojava dikarim bibêjim ku navê QASIMLO di nav me de pirr belave û gelekan navê wî li zarokên xwe kirine, hem jî xweş e ez we agahdar bikim ku îro(Vê Înê 13/07/2012), di xwepêşandanên bajarê Qamişlo de bi dehan wêneyê rehmetiyê Dr. Ebdulrehman Qasimlo di kolanên Qamîşlo de hatin bilindkirin.

Erê, her û her wê Dr. Ebdulrehman Qasimlo bimîne wek semyanekî sembolî ji tevî gelê Kurdistanê re. Di vê bîranînê de ez silavên xwe bo hevalên wî dişînim û bi teybetî mamoste Mistefa Hicrî, sekretêrê (PDKÎ) û serketinê bo Kurdên Rojhilat hêvî dikim û her wiha bi vê helkeftinê ez bejna xwe li ber navê Dr. Ebdulrehman Qasimlo re ditewînim û ji navê şehîdên Kurdistanê re xwe temene û xûz dikim.

## Kaniya helbestan




## Landik û Destar

Dayîka min destek te landik û yê din destar,

Tu landika xwe bihejîne...

Wî karwanê min hêj rêving divê

Destê din destarê xwe bihêre,

Nanê karvaniyan ji destarê te tê...

Danê wî ji çiya tê

Dayîka min tu landika xwe bihejîne,

Rêvîngên karwanê serbestiyê ji landika te tên...

Wêrekiyê ji harêna destarê te hîn dibin

Bihêre tu destarê xwe bihêre,

Harêna destarê te...

Qirmên û girmêna xeyal xawan di xwe de difetisîne

Bihejîne tu landika xwe bihejîne,

Lorîkekê ji bera bêje...

Looorî lorî..., berxê mino lorî,

Bavê te werzêr e, dayîka te bi gorî

Îşev karwanek li ber baniyên gundê me bihorî,

Ezê ji landika te re çêkim çar gîfik û...

Ji zînê hespê serkawanê xwe re mercan û morî

Bihêre dayîka min tu destarê xwe bihêre,

Her çiqas destarê te bi harên û bi hewar e...

Ewqas mirin ji ast serkarwanê min de, şermezar e

**Ceifer Mubeşirniya**

# Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye
Ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

www.kurdistanmedia.com/kurdi
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE
E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com


Urmiye, gundê Qasimlo

## Kurdên Rojavayê Kurdistanê di xwenîşandanekê de “Dr. Qasimlo” bibîr anîn

**Kurdên Sûriyê bi boneya 23’mîn salvegera terora Dr. Qasimlo, xwenîşandanek lidar xistin û wefadariya xwe ji bo wî rêberê Kurd nîşandan.**

Bi boneya 22’ê Pûşperê, li parçeyê rojavayê Kurdisanê rêz ji yad û bîranîna Dr. Qasimlo hat girtin û wefadarî bi wî û rêbaza wî ku rizgariya netewî ye, hat nûkirin û di wê derheqê de Kurdên Rojava li bajarê “Amûdê” û Qamîşlo de xwenîşandan lidarxistin û dirûşmên “Qasimlo” ‘’Ehmedînijadê terorîst û rejîma qatil” bilind kirin.




## Kebûdwend di girtîgehê de terorkirina Dr. Qasimlo mehkûm kir

**Mihemedsidîq Kebûdwend, Berpirsê Saziya Mafên Mirovan a Kurdistanê, di daxuyaniyekê de terorkirina Dr. Qasimlo ji aliyê rejîma Îranê ve bi tundî mehkûm kir.**

**Deqê daxuyaniya Kebûdvend ev e:**

22’ê Pûşperê roja terorkirina Dr. Ebdulrehman Qasimlo Sekreterê Giştî yê PDK Îranê ye, ku ew roja han weke roja mehkûmkirina terorîzma dewletî li Kurdistanê hatiye binavkirin.

Di weha rojekê de, ew rejîma ku li hemberî xwastekên rewa ên xelkê Kurdistana Îranê, bê şiyan mabû, û bi piştgirêdan bi gişt rêkarên leşkerî ên totalîterî û terorîzma dewletî, rêberê yek ji partiyên herî bibandor û bihêz ji tevgera xelkê Kurdiostanê partiya tevgera xelkê Kurdistanê, wate PDK Îranê li ser maseya gotûbêjê xist ber destrêjê, bi vê hêviyê ku xwastek û daxwaziyên rewa ên xelkê Kurdistanê tevî termê di xwînê de sûrbûyî yê Dr. Qasimlo bispêre axê, lê di pêkana vê armancê de ser neketin.

Ez Mihemedsidîq Kebûdwend weke girtiyek Kurd, wan çend dêran di demekê de dinivîsînim ku seba nerazîtî li hember binpêkirinên maf û cudahiyên qewmî, regezî û mesebî, derheq girtiyên Kurd, min gireva birçîbûnê girtiye.

Her di vê pêwendiyê de bi navê “Saziya Mafên Mirovan a Kurdistanê”, terora xebatkarê azadîxwaz, demokrasîxwaz û mafxwazê Kurd Dr. Ebdulrehamn Qasimlo ku 23 sal berî niha hate terorkirin, û wek tawaneke dîrokî tê hesibandin, bi tundî protesto dikim, û terorîzma dewletî û awayên din yên terorê jî bi tundî ret û şermezar dikim.

**Mihemedsidîq Kebûdwend**
**Berpirsê Saziya Mafên Mirovan a Kurdistanê**

**Tehran, Girtîgeha Êvîn**
**29’ê Pûşpera 2012’an**

